*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (249) 07-03-2015 Buha (150) Tûmen*







## Hevalbendiyeke nû li dijî rejîma Îranê




Wezîrê Karê Derve yê Erebistana Si'ûdî, di konferansa rojnamevaniya xwe ya tevî Wezîrê Karê derve yê Amerîkayê li Riyazê ragehand ku, destêwerdanên Komara Îslamî ya Îranê li Îraqê bûne sedema serhildana şerê tayîfî.

Wezîrê Derve yê Erebistana Si'ûdî di vê derheqê de got ku, destêwerdanên Komara Îslamî tewahiya welatên herêmê xistine bin bandora xwe de, û destêwerdanên wê bûne sedema têkdana rewşa ewlehî û serhildana nakokiyan û şerên tayfî. Ji ber ku şerê tayîfî di Îraqê de piştî destêwerdanên Komara Îslamî derket holê.

Si'ûd Elfeysel herweha beşdariya eşkere ya Komara Îslamî di şerê Tikrîtê de, weke sedema sereke ya nîgeraniya xwe derheq lihevhatina Rojava û rejîma Îranê da zanîn.

Ji aliyekî din ve dîplomatên erebî ragehandin ku, şahê nû yê Erebistana Si'ûdî dixwaze ku bi tûjkirina welatên Sunî ên herêmê bona destkişandin ji kêşe û arîşeyên di navbera xwe de, lihevhatineke nû di Rohilata Navîn de pêk bîne, bona rêgirtin ji gef û tehlûkeyên Komara Îslamî û Dewleta Îslamî li Îraq û Şamê (DAÎŞ'ê).

Hate zanîn ku şahê Erebistana Si'ûdî di civînên xwe yên çend rojên derbazbûyî tevî welatên erebî yên Kendavê de, û herweha digel Ordon, Misr û Turkiyê, li ser hewcehiya lihevhatina wan li dijî Komara Îslamî û DAÎŞ'ê tekez kiriye.

## Sergotar

# 8’ê Adarê

**Nahîd Husênî**

INTERNATIONAL
WOMEN’S
DAY 8 March 2015
Make it Happen

Hekî em wekî yek ji fakterên sereke yên guhertinên civakî li tevgerên medenî binêrin, û wekî katalîzorekê bihesibînin ku hewlê dide ji bo jêhelbirina xwestekên xelkê, û ji bo wekheviya civakî, tevgera jinan jî ji vê bazineyê dernakeve.

Hestkirin bi nedadperweriya giştî, û di hember de hewldaneke giştî ji bo dîtina kêşeyan, û piştre çareserkirina wan, destpêkek dibe ji bo serhildana tevgera jinan.

Îro rojê li gora wan guhertinên kûr ku bi awayekî gelemperî di piraniya civakan de pêk hatiye, êdî em nikarin tevgera jinan tenê ji bo rizgarbûn ji destê maldariyê û xwedîkirina zarokan de sînordar bikin.

Berevajî ew tevger niha nîşan didin ku guhertineke giştî ya civakî pêk hatiye, û daxwaziyên jinan jî zêdetir bûne, û jinan xwe gihandine bazara kar, û xwendina bilind bi dawî anîne, û di pêgehên siyasî û civakî de xwe dîtine.

Tevgera jinan digel vê yekê ku komek xalên wê yên hevpar hene, cudahiyên wê jî di welatên cuda cuda de zêde ne, û taybetmendiya rewş û hewayê siyasî û civakî û aborî ya wî welatî bandora xwe li ser heye.

Takê Kurd xeynî takê dersxwan, nasyarî digel vê tevgerê bi başî tuneye, û rewşenbîriya fîmînîstî li cem wan lawaz e, û heya gellek caran wekî çemkeke ne di cihê xwe de, tê pênasekirin.

Ew têgihîştin wisa dike ku tevgera jinan ji çemkeke azadîxwaz û wekhevîxwaz ve, wekî çemkeke pawanxwaz ji aliyê jinan ve bê zanîn, ku hewl dide da ku bibe xwedî deshilat, ku di rastî de ew şêwe têgihîştin cudahiyeke cewherî heye digel bingehên hizrî yên tevgera jinan.

# Deftera siyasî a PDKÎ derheq koça dawî ya Yaşar Kemal daxûyaniyek belav kir



Eva deqê daxûyaniyê ye:
Roja Şemiyê 28’ê Şibata 2015’an (9’ê Reşemeya 1393’an), nivîskarê bi nav û deng ê Kurd Yaşar Kemal di temenê 92 saliyê de, di yek ji nexweşxaneyên bajarê Îstenbolê de koça dawiyê kir.

Ev nivîskarê bi nav û deng xwediyê hejmarek roman û mijarên edebî ye ku her yek ji wan bi çend zimanan hatine wergêrandin.

Her di heman demê de pêvajoya jiyan û serpêhatiyên wî jî, bi xwe romanek rastîn û pirr ji evraz û nişîv bû. Yaşar Kemal di 06.10.1923’an de, li bajarê Hemîtê û di malbateke Kurd de tê dinê.

Di temenê 6 saliyê de, û li ber çavên wî babê wî dikujin, lewra heya temenê 11 saliyê zimanê wî hate girtin û nekarî baxive.

Destengî û hejariyê rêya xwendinê jê girt, û di bûyerekê de çavekî xwe ji dest da, lê bi vî halî jî bîr û hizra xwedî geşe û afirîner a wî, deriyê cîhaneke din ber bi nivîsandinê jê re vekir. Yaşar Kemal di heyama jiyana xwe da zêdetir ji 50 roman û çîrok nivîsandin ku parek ji wan bi ser çend zimanan hatin wergêran û, kakila piraniy wan jî bas ji zulm û bê edaletî û alîgiriya ji mafê mirov û kerameta mirovî ye û xwediyê çendîn xelatên edebî ye.

Yaşar Kemal Kurd, û alîgirê dabînkirina mafên Kurdan bû, û her eva jî bûye sedema girtin û zîndanîkirina wî, lê girtîgehê nekarî wî ji vê rêyê derxîne.

Di wan çend salên dawiyê de, ew endamê Komîsyona Aqilmendên Turkiyê bû, bona çareseriya pirsa Kurd di Turkiyê de. Nemana Yaşar Kemal xisarek mezin e bo edeb û roman û çîrok û bona xortên neteweya Kurd û azadîxwazên herêmê.
Deftera siyasî a PDKÎ bi sedema koça dawî a wî nivîskarê navdar ê Kurd û herweha azadîxwaz û aşîtîxwaz, sersaxiyê ji malbata birêz a Yaşak Kemal, û tewahiya nivîskar, rewşenbîr û bi giştî xwedî qelem û hunerdostan û tewahiya xortên neteweya Kurd dike, û bi çavê rêz û emegnasî ve li jiyana pirr ji berhem û mirovdostiya wî nivîskarê navdar ê Kurd dike.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**10.12.1393**
**01.03.2015**

# Ronîkirina sekretariyeta PDKÎ, derheq êrîşa li ser kempa Azadî




Sibehiya roja Sêşem 03.03.2015 (12.12.1393)’an bi dûr ji her cure pirensîpeke yasayî û medenî, û bi hêceta kêşeyeke civakî di navbera du malbatan de, hêzeke hevbeş ya Asayiş û polîsê Koyê êrîşê dikin ser kempa Azadî ya PDKÎ li Koyê, û bêhurmetiyeke zaf bi jin û zarok û kadr û pêşmergeyên PDKÎ dikin.

Eva yekem car nine ku hêzên polîs û Asayişa Koyê, êrîşên bi vî rengî dikin ser PDKÎ, û her carê berpirsyarên Partiya Demokrat bona vê ku şer û kêşe rû nedin, hewla aramkirina rewşê daye, lê vê carê hêzên Asayiş û polîs, lêdan û bêhurmetiyeke zaf bi jin û zarok û herwisa kadr û pêşmergeyên ku di cihê bûyerê de bûn kirin.
PDKÎ wê kiryara hêzên Asayişa Koyê bi tundî pirotesto dike, û daxwazê dike ku nawendên biryarder ên Hikûmeta Herêma Kurdistanê, û herwisa berpirsyarên YNK’ê ku di bajarê Koyê de roleke sereke di birêvebirina îdareya bajar de dilîzin, pêngavên micid ji bidawîanîna wan cure kiryaran hilgirin. Di heman demê de em daxwazê ji bîr û raya giştî û bi taybetî xelkê xwedî şeref yê Koyê dikin, ku di hemberî wan bêhurmetiyan de, bê helwêst nebin, bona vê ku hêzên Asayiş û polîs ku dibe parêzerê kerameta xelkê bin, bi xwe bûyerên bi vî rengî pêk nehînin.

**PDKÎ**
**Sekretariyet**
**03.03.2015**

# Daxûyaniya Deftera Siyasî ya PDKÎ, bi boneya birêveçûna nehemîn pilînoma Komîteya Nawendî




Kurdistanmedia: Deftera Siyasî ya PDKÎ, bi boneya birêveçûna 9'emîn pilînoma Komîteya Nawendî daxûyaniyek bilav kir, ku deqa wê bi vî awayî ye:
Nehemîn pilînoma Komîteya Nawendî ya PDKÎ, hilbijartiya kongireya 15'an ya PDKÎ roja Şemî 2'ê Reşemeya sala 1393 (21.02.215) bi beşdariya piraniya endamên eslî û cihgirên Komîteya Nawendî di binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ de pêk hat, û piştî sê rojan karê berdewam, êvariya roja Duşemî 4'ê Reşemê dawî bi karên xwe anî.

Nehemîn pilînoma Komîteya Nawendî ya PDKÎ, di destpêkê de bi ragirtina deqeyekê bêdengî ji bo rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan û bi taybetî şehîdên vê dawiyê yên Kurdistanê dest pê kir. Piştre li gora destûra karê diyarîkirî, ku endamên rêberiya PDKÎ ji vê destûrê hatibûn agehdarkirin, sekreterê giştî yê PDKÎ rêzdar Mistefa Hicrî, baseke siyasî li ser rewşa niha ya herêma Rojhilata Navîn, Îran û Kurdistanê bi giştî û pirsên pêwendîdar bi PDKÎ, pêşkêşî pilînomê kir.

Di behsa siyasî ya sekreterê giştî yê PDKÎ de, rewşa welatên herêmê û serhildan û kiryarên dewleta Îslamî (DAÎŞ), û bandora wê lê li ser rewşa herêmê baleke taybetî pê hatibû dan.

Di vê beşê de, bas ji nifûza kesên ser bi rejîma Îranê, Bexda û Beşar Esed û Hizbullahê û hinek aliyên din bi armanca lawazkirina pêgeha siyasî ya Sunî û Kurdan di Îraqê de hatibû kirin ku encama wê, bihêzbûna DAÎŞ û ji vê riyê ve jî, rewş xweşkirin ji bo destêwerdan û nifûza zêdetir û eşkeretir ya Komara Îslamî ya Îranê li Îraqê de bû.

Di heman demê de têkelkirina Kurdan di şerê DAÎŞ de, ku nirxeke zaf ya malî û canî bi ser Kurd de sepand, di demekê de bû ku pêştir deshilata nawendî li Îraqê budceya Herêma Kurdistanê birîbû, ku ew yek jî bû sedema pêkhatina tengasiya aborî di Herêma Kurdistanê de, û di rewşeke wisa de jî şerê DAÎŞ li herêmên cur bi cur ên Îraqê de zêdetir ji 1 milyon aware rewaneyê Herêma Kurdistanê kir, ku akincîkirin û pêregihîştina bi wan giraniyeke zaf xiste ser stûyê Herêma Kurdistanê.

Her di vê derheqê de qala siyaseta Komara Îslamiya Îranê di şerê li dijî DAÎŞ'ê de hate kirin, ku merema wê parastina herêmên Şî'e akincî yên Îraqê û dana derfetê bi DAÎŞ'ê bo dest bi ser de girtina çalên neftê, bi taybetî di herêmên Kurdistanî yên derveyî Herêma Kurdistanê, bona vê ku piştre bi hêceta girtina wan, Komara Îslamiya Îranê û milîşayên Şî'e di wan herêman de akincî bin, û ji destê Herêma Kurdistanê de derxînin.

Di beşeke din ya behsa siyasî ya sekreterê giştî yê PDKÎ, derheq gotûbêjên navikî yên di navbera Komara Îslamiya Îranê û welatên 5+1 de hatibû ku renge Komara Îslamiya Îranê neçar be ku mercên Rojava qebûl bike, bona vê ku dorpêçên li ser xwe bide rakirin, ku rewşeke wisa alîkar dibe bo dewleta Rûhanî, da ku guhertineke herçend kêm be jî, di jiyana xelkê de pêk bê.

Lê serkuta xelkê û azadîxwazan û pêvajoya îdaman her dom heye, û derfet ji bo destêwerdana Komara Îslamiya Îranê di nav karûbarên welatên herêmê de, û alîkariya zêdetir bi girûpên tundrew û terorîst re pêk tê.

Di behsa siyasî ya sekreterê giştî de, rewşa Herêma Kurdistanê girîngiyeke taybetî pê hatibû dan, û qala vê yekê hatibû kirin ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê digel hinek kêşeyên taybetî berbirû ye, ji ber ku şerê DAÎŞ'ê nirxeke giran ya malî û hêzeke zaf ya mirovî bi ser Herêma Kurdistanê de sepandiye.

Herwisa kêşeya herêma Kurdistanê jî ne çareserkirî maye, û duberekiya di navbera aliyên beşdar di hikûmetê de bi dawî nehatiye. Nebûna fermandehiyeke yekgirtî ji bo hêza pêşmerge ew jî di rewşa şer de pêk nehatiye.

Xirabiya rewşa aborî, çalakiya kompanyayan ragirtiye, û piraniya pirojeyan bi nivîşkanî mane, û nîgeraniya sermayedanîna derekî dets pê kiriye, ku hemû jî kêşeyên berçav in, li pêşberî hikûmeta Herêma Kurdistanê.

Lê di hemberî vê yekê de, pêkhatina hevalbendiya Rojavayiyan ji bo lêdana DAÎŞ'ê û parastina Herêma Kurdistanê û perwerdeya hêza pêşmerge û çekdarkirina wan bi keresteyên hewce alîkar bûn ji bo vê ku xelkê xweragir yê Kurdistanê îtibareke berçav ji bo Kurd di nav kom û komeleyên navneteweyî de çêbike.

Her di vê demê de, bergirî û xweragiriya cesûrane û canfîdayiya hêza pêşmergeyên Kurdistanê, û bi taybetî xortên neteweya Kurd li ber çavên bîr û raya giştî ya Îraq û cîhanê balkêş bû.

Zexta Amerîkayê li ser Îbadî serokwezîrê Îraqê ji bo nermî nîşandan di hemberî daxwaziyên Kurdan de, encama wê helwest û xweragiriya xelkê Kurdistanê bû, û di vê derheqê de pilînomê rêz û pêzanîna xwe pêşkêşî hêza pêşmerge kir û digel malbatên serbilind ên şehîdan hevsoz û hexemiya xwe ragehand û serkevtina pêşmerge bi ser dijminên Kurd û azadiyê de hêvî xwast.

Di birgeyeke din ya basa siyasî ya sekreterê giştî de, bas ji piroseya aştî ya di navbera PKK û hikûmeta Tirkiyê hatibû kirin, û bas ji vê hatibû kirin ku herçend ew pêvajoya gellek evraz û nişîv têketine, û rastî astengiyan hatiye, lê dîsan jî cihê kêfxweşiyê ye, ku tu yek ji wan aliyan bêhêvî nebûne.

Pilînomê hêvî kir ku ew pêvajoya bi hest û berpirsayetiya zêdetir û domandina pêvajoyê, bigihîjin encamên dilxwaz, ku hem di berjewendiya Kurd û hem jî hikûmeta Tirkiyê de be.

Di behsa siyasî derheq Kurdistana Rojava de, pilînomê kêfxweşiya xwe ji rizgarkirina Kobanê û serkevtina şervanan û hêza pêşmerge eşkere kir, û helwêsta Tirkiyê di warê rêdan bi hêza pêşmerge ji bo şerê DAÎŞ li Kobanê û alîkarîkirina şervanan wekî helwêsteke pozetîv nav bir.

Her di vê dergheqê de, di demekê de ku têkbirina DAÎŞ'ê li Kobanê û derdora wê, pêleke şahî û kêfxweşiyê, di nav şervanan û hêza pêşmerge û heya di asta herêmî û cîhanî de li pey xwe hebû, pilînomê hurmeta xwe ji bo şervanan û hêza pêşmerge ducarî kir û digel malbatên şehîdên vê xweragiriyê hevsoziya ducarî kir, û di heman demê de, ew kêmasiya jî berçav girtibû ku yeknegirtina hêzên siyasî ên Kurd di

Dom R: 5

# Hevpeyvînek digel birêz Mihmednezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq hinek pirsên girîng yên rojevê

**Birêz Mihmednezîf Qadirî: "PKK'ê di karûbarên perçeyên din de siyaseta destêwerdanê hebûye, lewra ew di pêwendiyên xwe bi aliyên siyasî re, berbirûyê kêşe û nerizayetiyê bûne".**



H: Kurdistan

**Pirs: Di van rojan de gellek caran em dibihîsin ku berpirsyarên partî û aliyên siyasî ên Kurdistana Başûr, bi hêcetên cur bi cur spasiya rejîma Îranê dikin ku di demên derbazbûyî de, û niha jî alîkariya wan kirine, û Kurdan deyndarê şoreşa Îslamî dizanin, û şexsê Xomeynî wekî mînak ji xwe re dibînin, û wî palpişteke bihêz bo xwe dihesibînin, bi baweriya we heya çi qasî ew boçûn, di hemberî siyasetên borî û ên niha ên Îranê, di hemû perçeyên Kurdistanê de bi cî ye, û sedema vê minetbariya hertimî di çi de ye?**

**Bersiv:** Piştî serhildana sala 1991'an a xelkê Kurdistanê û ramalîna hêzên Be's ji aliyê bereya Kurdistanî ve, rêberên Îranê hewl dane ku herêma Kurdistanê bikin melbendek ji bo siyasetên xwe, û rewşê ber bi aliyekî ve bibin ku di xizmeta berjewendiyên wan de be, û bi riya ajan û terorîstên xwe ve, bi dehan tekoşerên Rojhilata Kurdistanê teror kirin, bi bêy vê ku hurmeta herî kêm ji bo deshilata siyasî ya Herêma Kurdistanê danên, ew siyaseta giha astekê ku metirsiya canî li ser rêberên sekolar ên Kurd ku li dijî wan cure pêwendiyane bûn danî. Piştî rûxana rejîma Sedam di sala 2003'an de, rejîma Îranê hewla siyaseteke kopîkirî ya ji cureya rejîma Îranê daye û dide, û bi tewahî hewla paşxistina piroseya demokrasî û federalî ya wî welatî dide, û bi hemû awayî hewlê dide ku Şî'e di wî welatî de serdest bin, û hewl dide ku Kurd û Suniyan jî bavêjin aliyekî, û bi handana ajanên xwe, niha di vî welatî de, şerê Sunî bi Sunî, û şerê Kurd bi DAÎŞ'ê didin kirin, û şerekî bi xwîn bi ser xortên Kurd de sepandine.

Rejîma Îranê û rêberên wê piştî azadkirina herêmên Kurdistanî û baskirin ji dewleta neteweyî yekem aliyê dijî vê piroseyê bûn, ku bi handana Şî'eyan bona zextxistina li ser Herêma Kurdistanê di warê aborî de, û anîna mîlîşayên Şî'e yên kedîkirî ji aliyê xwe ve, herêmên Germiyan û Kerkûkê xistine jêr zextê, û rewş wisa lê hatiyer ku beşek ji deshilata Herêma Kurdistanê hest bi vê metirsiyê bike.

Ew rohnkirin vê yekê dibêje me ku civatên xelkê Kurdistanê û serokatiya siyasî û bi ezmûn ya başûra Kurdistanê dibe hişyarî vê siyaseta metirsîdar bin, û pêwendiyên wan jî çi wekî Herêm û çi jî wek aliyekî siyasî, siyasetên xwe bi Komara Îslamiya Îranê re wisa rêk bixin ku cardin Kurd berbirûyê wan arîşeyan nebin, û di kêşe û rikeberiya herêmî de, Kurd serweriya xaka xwe biparêze.

**Pirs: Paş avakirina kantonên Rojavaya Kurdistanê, di çend mehên borî de, me dîtiye ku PKK'ê berdewam bas ji avakirina kantonên cur bi cur û encûmena xwebirêvebirî û binavkirina Kurdên Êzidî, Yarsanan û di wan dawiyane de jî, Hewramiyan wekî neteweyek cuda dike, armanc ji vê siyasetê çi ye, û çi xizmetekê bi tevgera neteweya Kurd dike?**

**Bersiv:** Gelê Kurd bi dirêjahiya dîrokê de, xebata xwe ji bo rizgariya nîştimana xwe kiriye, û li ser bingeha vê ku Kurd yek netewe ye, û Kurdistan yek nîştiman e, berxwedanî kiriye û xwîn daye, û pirsa Kurd pirsa zarave yan meseb û ayîn nebûye, ku niha xelk û xaka Kurdistanê bi navê Kanton ya her şêweyeke din ji birêvebiriyeke bi vî rengî daxwaz bike.

Em li ser vê baweriyê ne ku hekî xortên Kurd bi hemû pêkhateyên ayînî û mesebî ên xwe bigihîjin mafên xwe, di çarçoveya sîstemeke demokratîk û destûreke pêşkevtî, daxwaziyên wan wê bêne desteberkirin, û wê bigihîjin serweriya xwe ya neteweyî.

Siyaseta PKK yan her rêkxiraweke din ku wisa bîr bike, demekê dikarin bandorê danên ku girînigiyê bidin pirsa neteweyî, û erdnîgariya Kurdistanê bi yekparçe bibînin, û bîrkirina wan neteweyî be.

Yarsan, Êzidî, Hewramî û...hwd hemû beşek in ji neteweya Kurd û nîştimana Kurd. Ew bîrokeya ku ew bas dikin nikare pirsa Kurd çareser bike.

**Pirs: Di bakura Kurdistanê de, PKK bas ji vê yekê dike, ku êdî armanca tevgera Kurd avakirina kiyaneke neteweyî di vê beşê de nine, gelo eva nahê wateya devberdan ji mafê diyarîkirina çarenivîsê bo Kurd?**

**Bersiv:** Di siyasetên PKK'ê de hinek cudahî hene, û wisa tê şirovekirin ku digel rewşa siyasî ya her yek ji perçeyên Kurdistanê cudahiyek zêdetir heye, û ji çareseriya pirsa Kurd di dewleta neteweyî û diyarîkirina mafê çarenûsê, hatiye xwar bo tiştên gellek sade, û retkirina pirsa dewleta Kurdî, û ji bo her yek ji perçeyên Kurdistanê jî di awayên cur bi cur de, pirsa neteweyî tîne gorê.

Ew yek jî bo hêzeke siyasî, wekî xaleke lawaz tê hesibandin, û haşakirin û xwe vedizin ji pirsa neteweyî, di siyaseta wan de bandora nîgatîv li ser tevgera mafxwazane ya gelê Kurd dadinê, û li ser wan giran tewaw dibe.

**Pirs: PKK her wisa bas ji vê dike ku ew destêwerdanê di nav karûbarên Kurdistana Başûr de nakin, hûn vê yekê heya çi qasî rast dibînin, gelo we jêve nine ku di pêşerojê de heman siyaset derheq Rojhilata Kurdistanê de jî hebin?**

**Bersiv:** Hekî ew boçûna wan bi kiryar di siyaseta wan de reng vede baş e, lê eva ku heya niha cihê gazindeya partî û aliyên siyasî ên perçeyên din yên Kurdistanê ji PKK'ê ye, ew e ku

Dom R: 5

**Doma R: 3**

birêvebirina hevbeş ya herêman de, zirara wê heye, û dibe hewlê bo çareseriya vê kêmasiyê bidin.

Di behsa siyasî ya sekreterê giştî de, rewşa Kurdistana Rojhilat girîngiyeke taybetî pê hatibû dan. Herwisa qala vê hatibû kirin ku di dema pilînoma pêşîn û vê pilînomê de cuda ji têkçûna rewşa jiyana xelkê, emniyetîkirina zêdetir ya Kurdistanê û jêhelçûna rêjeya îdaman û pêknaîna rewş û hewayeke pirr ji tirsê ji bo xelkê û bi taybetî ji bo malbatên girtiyên siyasî, guhertineke erênî berçav nakeve, lê serbarê vê rewşê nîşaneyên dijberiya xelkê bi rejîmê re, di derfetên cur bi cur de tê dîtin ku gireva girtiyên siyasî li Urmiyê û xwenîşandanên ji bo Şingal û Kobanê, û gireva mamostayên xwendingehan mînaka wan çalakiyan e. Pilînomê rêz ji wan çalakiyan girt, û tevî şermezarkirina Komara Îslamiya Îranê li warê îdama xortên Kurd, hevsoziya xwe di gel malbatên şehîdên vê dawiyane eşkere kir.

Di beşeke din ya karê pilînomê de, derheq erkdarkirina Komîteya Nawendî derheq pirsa malî ya PDKÎ, û girtine pêş ya rêkareke hewce, hate ragehandin ku gellek pêngavên erênî hatine hilgirtin, lewra pilînomê spasiya hemû endaman û organên hizbê û malbatan û hemû wan kes û aliyan kir ku alîkar bûn, bi taybetî komîteyên PDKÎ li derveyî welat ku pêngavên wan erênî û cihê pêzanînê bûn. Beşeke din ya behsê pêk hatibû ji behskirina li ser gotûbêja bi hevalên pêşîn re.

Di vê derheqê de pilînomê piştgiriya xwe ji hewlên Deftera Siyasî bi hevalên pêşîn re bi armanca yekgirtinê ragehand, ku Deftera Siyasî erkdar kir ku hewlên micidtir di vê derheqê de bide.

Dawî beşa karê pilînoma behs û raderbirîn li ser pêşnivîsekê bû li ser saxtara (dîskorsa) PDKÎ, ku pilînoma berê heyetek jê re destnîşan kiribû. Ew pêşnivîs jî piştî beşdariya çalakane ya endamên pilînomê, biryar hate dan ku heyeta destnîşankirî carek din bi berçavgirtina boçûnên pilînomê pêdeçûneke din bi ser de bike, û piştî bi cih kirina pêşniyaran, di pilînoma bê de, dîsan bas li ser bê kirin.

Nehemîn pilînoma Komîteya Nawendî ya PDKÎ, hilbijartî ji aliyê kongireya 15'ê ve, roja Duşemî 4'ê Reşemê (23.02.2015) dawî bi karên xwe anî.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**05.12.1393**
**24.02.2015**

**Doma R: 4**

PKK'ê di karûbarên perçeyên din de siyaseta destêwerdanê hebûye, lewra ew di pêwendiyên xwe bi aliyên siyasî re, berbirûyê kêşe û nerizayetiyê bûne.

Li ser rêz û hurmeta beramber, bi dûr ji siyaseta destêwerdanê, pêwendiyên xwe digel partî û aliyên siyasî rêk bixin, û derheq Rojhilata Kurdistanê tenê dikarin bi vî awayî riha yekgirtina neteweyî bihêz bikin.

**Pirs: Di doma pirsa girêdayî yekgirtinê, di van dawiyane de Deftera Siyasî rûniştinek bi hevalên pêşîn ên cudabûyî pişt kongireya 13'ê re pêk anî, gelo ew piroseya heya niha gihaye kuderê, asteng heya çi qasî dikarin nemînin, hûn îradeya çareseriyê di herdu aliyan de çawa dibînin?**

**Bersiv:** Me ragehandiye ku siyaseta me hewldan e ji bo yekgirtina digel hevalên pêşîn, di refa PDKÎ de, û li ser bingehên sereke ên kongireya 13'ê ku me bi hev re pesend kirine, û ew xalên me yên hevbeş in. Di vê piroseyê de jî, ez bi niyetpakiya ku em di xwe de dibînin, dikarim bêjim ku ew pêngavên ku me heya niha hilgirtine, erênî ne.

**Pirs: Di wan dawiyane de pêleke berfireh ji îdama bendkiriyên siyasî, li Rojhilata Kurdistanê ji aliyê Komara Îslamî ya Îranê ve rê ketiye, bi boçûna we armanca rejîmê ji wan îdama çi ye?**

**Bersiv:** Ji tu kes û aliyekî veşartî nine, ku rejîm bi îdamkirina girtiyên siyasî û çalakên xebata medenî, ku hilgirê bîra azadîxwaziyê û nîştimanperweriyê ne, di vê siyaseta xwe ya tirsandina xelkê de serkevtî nebûye, û ji aliyê rêkxirawên piştevanê mafê mirovan ve hatiye mehkûmkirin, û zêdetir bi tenê maye, û bi vê siyaseta xwe nikare îradeya girtiyên siyasî ên şoreşger têk bişkîne. Ew berxwedaniya wan, dibe çîroka serhildan, û rizgarbûna ji destê dîktatoriyê.

# *Spaha Quds di Qamîşlo de li dijî Kurdan çalak e*



**Fermandarekî Hêza Quds a pasdarên Îranê bi pileya lîwa li mala serokê eşîra "Tey" ya Ereb Şêx Mihemed Faris li Qamişlo tevî 8 serokeşîrên Ereb ên deverê civiya.**

Heman jêderî ku nexwast navê wî were eşkerekirin, tekez kir ku Fermandarê Tabûra "Tertep" ya artêşa Sûriyê ya li başûra Qamişlo jî di civînê de amade bû.

Li gora zanyariyan, derdora 5 hezar çekdarên wan eşîran li "Tertepê" perwerdeya wan ya leşkerî bi dawî hat, û artêşa Sûriyê ji hinek deverên Qamişlo û Hesekê vekişiyaye, û ew cih radestî wan çekdaran kiriye. Yek ji wan deveran navçeya Şemasiye li başûra Qamişlo ye."

Wî jêderî wiha domand: "Wî pasdarê Îranî soz daye fermandarê Tabûra Tertep û serokeşîran ku alîkariyên leşkerî û darayî bide wan, herwiha ew piştrast kirine ku Îran nahêle Kurd tu gefekê li wan bikin."
Serokê eşîra Tey ya Erebî Şêx Mihemed Faris, ku wêneyê Hz.

Elî (yekemîn îmamê Şî'eyan) li mala xwe daliqandiye, dê tevî berpirsê wan çekdaran, serkirdatiya wê hêzê bikin.

# *Ji malbata Şêx Se'îd 3 berendam*



Neviyê Şêx Se'îd Diyadin Firat ji bo berendamiya parlamenteriyê, serdana Partiya Demokratîk a Gelan (HDP) kir.

Diyadin Firat 2'yê Adarê ji bo berendamiyê serdana HDP'ê kir û ew dixwaze an ji Stenbol an ji Edanê an jî ji Amedê wî bikin namzed. Firat ji Rûdawê re got ew dixwaze êdî di navenda siyasetê de bixebite.

Firat anî ziman ewê ji bo çarçoveya gotûbêjên Ocalan ragihandî diyar bibe, hewl bide û heger ew ji bo namzediyê neyê hilbijartin jî banga vê yekê li HDPê dike.

Diyadin Firat derbarê mijara ku hin kes din jî ji malbata wî di partiyên cuda de berendam in wiha got:

"Malbatek mezin a Şêx Se'îd heye. Piştî daleqandina Şêx Se'îd çend caran malbata wî hat mişextkirin. Ji ber vê yekê jî endamên malbata wî polîtîze bûn. Tiştek normal e kesên endamên malbata wî tevlî siyasetê bibin û bibin namzed."

Beriya niha Neviyê Şêx Se'îd Kasim Firat ji bo berendamiyê serdana HDP'ê û Abdulrehîm Firat jî serdana AK Partiyê kiribû.
Çavkanî: Rûdaw

# Dewleta Îslamî (DAÎŞ), û pêşerojeke nediyar





Arif Vêlzî

Dewleta Îslamî li Îraq û Şam naskirî bi DAÎŞ'ê, ew girûpa binajoxwaz û tundrev e ku di valahiya şer û aloziyên çend salên borî di Sûriyê de, û herwisa lawazî û girêdayîbûna dewleta Nawendî ya Îraqê bi Komara Îslamî ya Îranê ve, li ser bingeha tundrevî û tirsandina xelkê pêk hat.

Lê ya ku balkêş e ew e ku çi di wê demê de ku DAÎŞ'ê beşeke zêde ji xaka Sûriyê dagîr kir û çi jî piştre ku êrîşî ser xaka Îraqê kir, û di çend demjimêran de, bi bê şer Mûsil û Tikrît û beşek ji xaka wî welatî bi cihên leşkerî ve dagîr kir, şêweya reftara wê girûpa cinayetkar û wêrankar digel deshilata Beşar Esed li Sûriyê û dewleta nawendî ya Îraqê çi li serdema Malikî û çi jî li serdema Îbadî de bû.

Ji ber ku wisa diyar e ku stratejiya avakirin û êrîşên DAÎŞ'ê li herêmê, lêdana wan aliyan be ku metirsiya wan li ser deshila Şî'e li herdu welatên Sûriye û Îraqê, û bi taybetî deshilata sîbera Komara Îslamiya Îranê li wan du welatan de be.

Ew yek jî tê vê wateyê ku renge gellek welat û alî saporta cur bi cur ya malî û leşkerî ya DAÎŞ'ê bikin.

Lê hekî em nebêjin ku DAÎŞ destçêkiriyê Îranê ye, aliyê kêm em dikarin bêjin ku Komara Îslamiya Îranê xwediyê pêgeheke bihêz e di nav wê rêkxistina terorîstî de.

Belge jî ji bo selimandina vê rastiyê êrîşa DAÎŞ'ê bo ser Kurdistanê, û hevdem xwe dûrxistina ji êrîşa bo ser herêmên Şî'eyan bû.

Ji ber ku bi êrîşa li ser Kurdistanê ku hevdem bû digel bilavbûna gotegota serbixweyiya Herêma Kurdistanê, peyamna neyarên Kurd û li serveyî hemiyan peyama Komara Îslamiya Îranê gehand, ku çavê dîtina serxwebûn û pêgeha bihêz ya Kurd di herêm û cîhanê de tunebûn, û pê nerehet in, û hem jî bi pêşrewiya heya kûrahiya herêmên sînorî, û xwe dûrxistina ji êrîşa bo ser herêmên Şî'eyan ku nawenda deshilata Komara Îslamiya Îranê di wî welatî de tê hesibandin û hêla sor in, nîşan da ku baskeke bihêz ya nav DAÎŞ a ser bi Komara Îslamiya Îranê ye, û eva Tehran e ku destnîşan dike, ku bo kuderê û heya kuderê êrîşê bikin, û berjewendiyên Komara Îslamiaya Îranê û hevalbendên wê çawa û ji çi riyekê ve, di herêmê de biparêzin.

Lê bi xweşî ve siyaseta rast û cîhanpesend ya îro ya lîderên Kurd di Herêma Kurdistanê û bûna pêgeha bihêz ya herêmî û fakterbûna Kurd di tenahî û aramiya herêmê de ji aliyekî ve, û ji aliyekî din ve destêwerdanên Komara Îslamiya Îranê bi awayê eşkere û teyarkirina girûp û taqmên cur bi cur ên terorîstî li jêr navê parastina cihên pîroz ên Şî'e li Sûriyê û Îraqê, weha kir ku civaka cîhanî û welatên mezinhêz ên wekî Amerîka û Fransa û Brîtanya û Almanya û...hwd, bi pêkanîna hevalbendiyeke navdewletî li dijî DAÎŞ'ê bêne ser xet û bi şandina çek û cebilxaneyan ji bo hêza pêşmerge û hevdem bordoman û birîna şademar û çavkaniya dahata çekdarên DAÎŞ'ê roj bi rojê paşekêşeyê bi wê hêza destçêkirî û tarîperest bikin û wan ji nav bibin.

Niha jî piştî çend meh şer û berxwedaniya gelê Kurd û hêza pêşmerge di hemberî DAÎŞ'ê de, û herwisa pelavêtina vê girûpê bo Lîbî û welatên din, û afirandina cînayetên wekî şewitandina balafirvanê Ordonî û serjêkirina 21 hevwelatiyên Qibtî ên Mîsrê û bi dehan karesatên bi tirs ên din di navxwe û derveyî Îraq û Sûriyê em dibînin ku bi xweşî ve stratejiya jinavbirin û derkirina DAÎŞ'ê li herêmê pê daniye nav fazeke nû de, û Kurd û Îraq û welatên cîhanê bi giştî hewlên xwe ji bo lêdan û jinavbiirna DAÎŞ'ê çirtir kirine.

Mînaka herî berçav ya wan hewldanan jî, hatina balafirhilgira Fransayê bo Kendavê, ji bo alîkariya hevalbendan bo lêdana DAÎŞ'ê û hevdem serdana Aşton Karter Wezîrê Parastina Amerîkayê bo Koveytê, û darêtina siyaset û pilanên nû, ji bo çawaniya jinavbirina DAÎŞ'ê û ji aliyekî din ve xwesazdana ser ji nû ya Spaha Îraqê û ji hemiyan jî girîngtir, biryara beşdarîkirina hêza pêşmerge ji bo lêdan û jinavbirina çekdarên DAÎŞ'ê li Îraqê de ye.

Bêguman hekî em bi hûrî jê binêrin em dibînin ku yekem pêngav û pêngava herî serekî ji bo lawazkirin û jinavbirina DAÎŞ'ê û hemû girûpên tundrev ên herêmê ew e ku destê têkderane yê Komara Îslamiya Îranê ku heya nih bi awayekî rasterast û ne rasterast di nav karûbarên navxwe û heya siyaseta derve ya Sûriye û Îraê û Lubnan û Yemen û ...hwd, û heya hinek ji welatên Amerîkaya latîn de heye, û rewşa siyasî û emnî ya wan welatan tevlîhev kiriye, Kurt bikî, ku Spaha Quds aramiya herêmê têk bibe.

Her eva jî dikare ku bibe destpêk û pêngaveke girîng di rasteriya lawazkirin, û neçar bi paşekêşê kirina wê girûpa terorîst û dijî mirovî, li Kurdistan û Îraq û Sûriye û herêmê bi giştî.



# Nerîna Lîderan



Barzanî:

**“Ez bi wefata Yaşar Kemal pirr xemgîn bûm”.**



Demîrtaş:

**“Helwesta me yek e”.**



Robiyo:

**“Dan û standinên bi rejîma Îranê re mehkûm bi têkçûnê ne”**



Erdogan:

**“Helwesta Ocalan, Qendîl û HDPê cuda ye”.**

# AKP û ewlehiya navxweyî





**Şehab Xalidî**

Partiya Dad û Geşepêdanê (AKP) bi hêceta parastina ewlehiya navxweyî ya Tirkiyê, paketek li jêr navê “paketa ewlehiya navxweyî” amade kiriye, ku ew paket ji 132 bendan pêk tê, û hemû hewla xwe ji bo pesendkirina wê paketê dide.

Lê ew hewldana AKP’ê rastî nerizayetiyeke berfireh ya partiyên opozisyon, û alîgirên wan partiyan hatiye.
Di vê derheqê de Demîrtaş hevserokê HDP’ê ragehand ku: “Paketa ji 132 madeyan pêk hatiye amade dikin, lê tê de ewlehiya civakê tuneye. Çi heye, ewlehiya serokwezîr, hikûmet û serkomar heye.

Emê 132 hefteyan li ser wan madeyan behs û gengeşeyê bikin.”
Roja 24’ê Şibatê jî di civîna parlementoya Tirkiyê de, bona gotûbêjkirina li ser paketa ewlehiya navxweyî, parlemanterên HDP’ê ji bo protestokirina madeyeke vê paketê, ku ceza ji pêçana ser û çavên xwepêşanderan re diyarî kiriye, bi xwe bi dev û rûyê pêçayî çûne parlementoyê de, û bi vê helwêsta xwe bala medyayaên herêm û heya cîhanê jî bo aliyê xwe rakêşan.

Mixabin ku AKP di cihê vê yekê de ku hewlê bo berfirehtirkirina demokrasiyê bide, berevajî bi amadekirina paketeke bi vî rengî pêngavan ber bi sînordarkirina azadiyan hildigre.

Pesendkirina paketeke bi vî rengî destê polîsên Tirkiyê ji bo serkut û girtin û heya kuştina meşvanan vekirî dihêle, û civaka Tirkiyê ber bi civakeke polîsî ve dibe, ku ew yek bêguman ne tenê nikare ewlehiyê bîne Tiriyê, belkû ew yek tê wateya têkdana ewlehiya civakê.

Neteweya Kurd ku di Tirkiyê de, ji bo mafên xwe yên siyasî û neteweyî û demokratîzekirina Tirkiyê, bi sedan û hezaran xortên xwe gorî kirine, qet amade nabe ku ji niha şûnda jî serê xwe di hemberî deshilatekê de bitewîne ku bixwaze bi darê zorê wan neçar bike ku dev ji xwestekên xwe yên medenî, siyasî û mirovî berdin.

Lewra herwekî Demîrtaş ragehandiye, ew paket tenê deshilata serkomar û derdora wê diparêze, ne ewlehiya civakê. Dijberiya CHP’ê û MHP’ê jî bi vê paketê re diselimîne ku ew paket tenê di berjewendiya AKP’ê de ye.

Bêguman di vê qonaxa hestiyar de, ku birêz Ocalan 10 xal wekî nexşeriya çareseriyê ragehandine, û PKK’ê jî pêşwazî ji vê bangewaza Ocalan kiriye, û ragehandine ku hekî AKP pêngavên bi kiryar ji bo cî bi cî kirina van 10 xalan hilgire, ewê jî daxwaza rêberê xwe bi cih bînin, eva êdî barê AKP’ê ji caran qurstir dibe, û dibe ew di cihê bîrkirina ji pesendkirina paketa ewlehiyê, bîr ji cî bi cî kirina wan 10 xalên nexşeriya çareseriyê bikin, da ku bikarin aştî û demokrasî û ewlehiyê di sertaserî welatê xwe de cihgir bikin.

Herçend ku ew daxwaziya Ocalan û pêşwazîkirina PKK’ê ji vê banga Ocalan wekî pêngavek ber bi pêş ve di pêvajoya çareseriyê de tê hesibandin, lê wisa diyar e ku Tirkiye dixwaze di destpêkê de PKK pêngavan bo çekdanînê hilgire, û di hember de PKK jî dixwaze ku Tirkiye pêngavên bi kiryar ji bo cî bi cî kirina xwastekên wan hilgire.

Di rastî de nebûna baweriya herdu aliyên sereke yên pêvajoyê bi hevûdu, sedema sereke ya hêdî birêveçûna pêvajoya çareseriyê di wan du salên borî de bûye.

Lewra em dikarin bêjin ku herdu alî dibe bi hilgirtina pêngavên bi kiryar, biselimînin ku ew xwazyarê çareseriyeke rastîn ya vê pêvajoyê ne ku dest pê kirine, ji ber ku çareseriya rastîn ya pirsa Kurd dikare aştî û demokrasî û ewlehiyê bo civaka Tirkiyê bîne, ne hewldan bo pejirandina paketa ewlehiya nevxweyî, yan tenê hewldan bo çareseriya pirsa PKK’ê di cihê çareseriya pirsa Kurd de.

# Rêzdar Seyîdriza Dirûdger: *"Şehîdkirina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî, û rizgarbûna pêşmergeyên PDKÎ ku di dema kîmyabara Helebçeyê de asê mabûn, ji bîreweriyên xweş û nexweş yên min in".*

H: Arif Velzî

Rêzdar Seyîdriza Dirûdger kurê Seyîd Ebdullah naskirî bi seyîd Ubeydullah roja 05.02.1326 (1947)'an di malbateke ayînî li bajarê Pawe de tê dinê. Seyîdriza serbarê vê ku di malbateke desteng û dartaş de hate dinê, lê diçe xwendingehê û qonaxên xwendinê bi serkevtin ve li bajarê Pawe û Kirmaşanê bi dawî tîne, heya ku "fewq dîplom"a xwe werdigre.

Piştre diçe xizmeta leşkeriyê û li Kerecê dewreya "Spaha Terwîcê" dibîne. Piştî bidawîanîna dewreya xizmeta leşkewriyê li sala 1348 (1969)'an di banka "Şîrketa Te'awinî ya Keşawerzî" ya bajarê Pawe de dest bi kar bû. Hêjayî basê ye ku du birayên wî bi navên şehîd Mensûr û şehîd Re'ûf di refên PDKÎ de şehîd bûne.

Navbirî derheq nasyariya xwe digel PDKÎ û tevlîbûna bi refên PDKÎ re weha dibêje: "Di sala 1357 (1979)'an ku şoreşa gelên Îranê dest pê kir, ez berpirsê bankê bûm. Hevdem min beşdarî di xwenîşandanan de dikir û hevahengî jî digel dijberên rejîma wê demê dikir. Di bereberê bi encam gihîştina şoreşê, hilbijartin ji bo şêvra bajarê Pawe hatin kirin. Min jî xwe berbijêr kir, û min deng jî anî. Berpirsayetiya di bankê de û endametiya di şêvra bajar de, û aloziyên navxwe yên Îranê, hevdem bûn digel xebata eşkere ya PDKÎ, wate mîtînga Mehabad û Bokanê.

Diyare min pêştir ji riya Yusif Kerîmzade û rehmetî Qazî Mihemed Ensarî ve, min PDKÎ nasîbû. Piştî bilavbûna dengê xebata eşkere ya PDKÎ min digel hevalên xwe Ebdulla Behramî, Hemexan Morowetî, Hadî Husênî, Fereydon Mîtran, Mistefa Husênî û Mihemed Weledbêygî û çend kesên din, me binkeyek wek Deftera Nûneratiya PDKÎ di pawe de vekir. Piştre ez û Ebdulla Behramî û Hemexan Morowetî û Fereydon Mîtran, em hatin bo mîtînga Mehabadê, û bo yekem car em digel Dr. Qasimlo nasyar bûn.
Li wir biryara avakirina binkeya PDKÎ bi fermî hate dan, û piştî vegeriyana me bo Pawe, Qazî Mihemed Ensarî ku berpirsê Partiya Restaxîz bû li Pawe, deftera partiya xwe da me, û bi awayekî fermî me kire deftera PDKÎ li Pawe.





Navbirî derheq bîreweriyên xweş û nexweş ên xwe weha dibêje: "Xeynî şehîdkirina Dr. Qasimlo û Dr. Şerefkendî ku derbeke mezin bû ku li PDKÎ li Kurdistana Rojhilat ket, û bîreweriyên min yên herî nexweş in, lê bîreweriyeke din ya xweş û nexweş di jiyana pêşmergatiya min de ew e ku: Helebçe hate kîmyabarankirin, û zêdetir ji 850 pêşmergeyên PDKÎ bi malbatên xwe ve, ketin dorpêça Îran û Îraqê, û hêzên Kurdistanî. Ez cihgirê Komîsyona Siyasî-Nizamî bûm, û bi bihîstina vê nûçeyê gellek nerehet bûm, û ez wê bîreweriyê wekî roja herî nexweş ya jiyana pêşmergatiya xwe dibînim".

Piştre navbirî zanyariyên zêdetir di vê derheqê de dide me: "Dr. Qasimlo bangî min kir û got ji ber ku pêştir li Şaho û Hewraman te berpirsayetî hebûye, û te nasyarî li ser wan herêman heye, here alîkar be bo rizgarkirina wan. Min got ez 2-3 kesên taybet dixwazim, Dr. Qasimlo got ku tu hez dikî ku kî bibî, bibe. Min jî Mihemed Weledbeygî û du kesên din bi xwe re birin, û ez çûm binkeya Silêmaniyê, ku berpirsê wî Xefûr Hemzeyî bû.

Min daxwaz jê kir ku min bibe cem berpirsyarên wê herêmê. Em çûne cem "Nawenda Firqe" li "Seraya Subhan Axa" di navbera Erbet û Seyîd Sadiq de. Piştî vê ku em gihîştin wir, û me halê hevûdu pirsî, navbirî soza alîkariyê da, û me wisa bernamerêjî kir ku ez herim ser cihekî bilind, û bi berpirsyarên hêzên pêşmerge re li pêwendiyê de bim. Hevdem min pêwendî digel Xefûr Hemzeyî hebe, ku li "Nawenda Firqe" de ye, û Xefûr jî berpirsê Firqeyê ji rewşa heyî agehdar bike, û ew jî hêzên Arteşê li sînorê Helebçeyê agehdar bike ku bi topbaran û bi firokeyan li hêzên PDKÎ nedin. Şev hat û bi hevahengî ve hêza me dest bi meşê kir. Şeveke tarî bû, û hêzên me tu cihek nedidîtin, min jî berpirsyarên pêwendîdar hemû agehdar kirin ku hêzên pêşmerge li ber tarîtiya zêde, tu tiştî nabînin, lewra arteşa Îraqê pêşberî hêzên pêşmerge ronahî kirin, û bo sibehiyê, hêz gihîşte nêzî arteşa Îraqê, û bi vê nîşana ku me digel berpirsyarên firqeyê danîbû, wate bilindkirina destmala spî û camaneyan, me yektir nasî, û bi xweşî ve tewahiya pêşmergeyan rizgar bûn".

Navbirî derheq jiyana hevbeş weha dibêje: "Di Rezbera sala 1357 (1978)'an de, min digel Şikofe Mistefayî ku di malbateke demokrat û demokratperwer de mezin bibû, min jiyana hevbeş pêk anî, û berhema jiyana me jî sê zarok in, zarokê me yê yekem bi navê Şoreş, pizîşkê pispor e li karûbarên zarokan li Brîtanyayê, û zaroka duyem keça min e bi navê Şine Dirûdger ku lîsansa derûnnasiyê heye û mamosta ye li xwendingeha "Rojhilat" ya PDKÎ, û zarokê me yê sêyemîn navê wî Şikar e, û xwendekarê sala sêyem ya beşa pizişkî ye li zankoya Selahedîn li Hewlêrê.

Navbirî bi vî awayî peyama xwe ji xelkê Kurdistanê re dişîne: "Hemû mirovên xwedî vijdan û hemû welatên cîhanê agehdar in ku çi zulm û stemek bi ser Îran û bi taybetî Kurdistanê de zal e. Bi hezaran kesî bi bê tawan di girtîgehan de hatin şehîdkirin, û serbarê vê yekê jî hêşta xelk neçûye jêr barê rejîmê û xebata xwe domandiye. Lewra ez spasiya xwe û hemû hevçeperên xwe pêşkêşî wî xelkî dikim, û dibêjim ku roja nemana Komara Îslamiya Îranê nêzîk e, xweragir bin, û herwisa xwe bi beşdar dizanim di wan hemû xem û kovanên ku bi ser wan de hatiye.
Ez piştgiriya wan dikim û hêvîdar im ku PDKÎ û hemû partiyên siyasî jî, di pêşerojê de xelata wan bedbextiyên ku hatine serê wî xelkî bidin.

# Çerxa siyaseta îranê bi madeyên hişber digere



Îdrîs Stwet



Di çend rojên derbazbûyî de Ebdulriza Rehmanî Fezlî wezîrê navxwe yê Komara Îslamî ya Îranê û cîgirê fermandarê giştî yê hêza Întizamî û berpirsê giştî yê xebata li dijî madeyên hişber, perde li ser dahata mafyaya Spaha Pasdaran vêde bir, û di çend gotinan de îşare bi madeyên hişber kir, û ew made bi yek ji giringtirîn zirarên civakê da zanîn, û ragehand ku ev diravê pîs tevlî hilbijartinên Îranê û siyasetên vî welatê bûye.

Ji kesê veşartî nine ku Spaha Pasdaran ya Komara Îslamî ya Îranê û desthilatdarên payebilind yên Komara Îslamî ya Îranê bi giringtirîn û metirsîdartirîn mafyaya qaçaxa madeyên hişber di Îranê û cîhanê hatiye naskirin, û derwazeya sereke ya bilavkirina madeyên hişber e di cîhanê de, û heke em ji dîtingeha siyasî ve mêze bikin, em dibînin ku Komara Îslamî ya Îranê bi ticaret kirin bi madeyên hişber, zaftir bi merema pêşvebirina siyasetên xwe yên qirêj, û bo pêkanîna aloziyan, û kirîza civakî di Îran û cîhanê û bixasmanî bo welatên rojavayî mifahê werdigre, û ji aliyekî din ve di warê aborî de tu çalakiyek bi qasî ticareta madeyên hişber bo Îran û Spaha Pasdaran dahat nine, û bo cîbicî kirina vê ticareta madeyên hişber û karên qirêj, tevî tevahiya terorîstên cîhan û xirabkarên cîhanê alîkariyê dike, û ev dahata han xincî vê ku di çarçoveya siyaset û hilbijartinên Îranê û Spahê de tê xerckirin, beşek ji vê dahata tiranzîtî ên madeyên hişber bo bihêzkirina terorîstan tê terxankirin, û kiryarên terorîstî pê encam didin.

Niha bi sedema tiranzîta Spaha Pasdaran bi madeyên hişber, dahata spahê ev qas zaf e ku bi tu awayekî nahê texmînp kirin û piraniya çerxa aboriya Îranê bi destê Spaha Pasdaran ve tê zivirîn û bitaybet desthilatdarên payebilid ên Spaha Îranê bi giştî bibne milyarder.

Di îranê de jî komara Îslamî ku xwe nawenda sereke ye bo sen'etîkirina hemû cure madeyên hişber û bo malxirabkirina xelkê û bo veguhastin û anîn û birinê, hêsankarî kiriye û dike, "ku li hemî cihekî, heya di gund û bendîxaneyan de jî dest dikeve" carina bo vê ku ruçikek baş li xwe nîşan bide û bo raya giştî ya cîhanê wa nîşan bide ku li bereya herî pêşê ne bo binbirkirina vê madeyê, dem deme hejmarek ji hurdefiroş û qaçaxçiyên derveyî çerxa mafyaya xwe û bo mifahwergirtin ji siyasetên xwe, xelkê digirin û zîndanî dikin û heya li darve dikin.

Her çiqas ku kirîn û firotina madeyên hişber di nav civaka Îranê û bi taybetî di kurdistanê de kêm nebûye, û zêdetir ji cara berbilav bûye, mixabin rejîm bi wan siyasetên çepel ên xwe beşeke zaf ji ciwanan tûşî madeyên hişber kirine.

# Mamosta ji ber kêmbûna mûçe daketin kolanan

Li Rojhilat[1] Kurdistanê û Îranê, mamosta neçûn ser kar û li dijî kêmbûna mûçe û hebûna ferq û cudatiyê di sîstema perwerdeya Îranê de xwepêşandan kirin.

Li gellek bajarên Rojhilata Kurdistanê û Îranê mamosta neçûn ser polên dersê û li dijî kêmbûna mûçe û nebûna dadperweriyê di sîstema perwerdeya Îranê de daketin kolanan.

Mamostayên kurd li bajarên Sine, Bokan, Ciwanro, Kirmaşan, Seqiz, Merîwan û Pîranşarê nerazîbûna xwe li dijî kêmbûna mûçe anîn ziman û ji hikûmetê xwestin, daxwazên wan bi cîh bîne.

Li bajarên Xurasan, Loristan, Hurmuzgan, Xûzistan, Fars Qezwînê û gellek deverên din ên Îranê jî bi hezaran mamosta ji hikûmetê xwestin, mûçeyê wan zêde bike û ferq û cudatiyê di sîstema perwerdeyê de nehêle.
Li Tehranê jî, komek mamosta li ber avahiya parlamentoyê kom bûn û nerazîbûna xwe anîn ziman.

Mamostayên Rojhilata Kurdistanê û Îranê 40 roj berê hişyarî dabûn Wezareta Perwerdeyê ya Îranê ku hekî mûçeyê wan neyê zêdekirin dê roja yekê Adarê xwepêşandanê bikin. Rûdaw



# Gotinên Navdaran



A: Firat Ceweri̇̂

Ji berdêla tu ê bipeyivî û gêjiktiya xwe nîşan bidî, nepeyive, da şika herkesî li ser te bimîne.

**Lincoln**

Yên ku dostên wan tunebin, dijminên wan jî çênabin.

**Tennyson**

Gava mirov behsa şexsiyeta hinin din dike, mirov şexsiyeta xwe qenc davêje ortê.

**Jean Paul Ricchter**

Pirtûkek baş, hevalekî baş e.

**Saint-Pierre**

Pirtûk sar in, lê dostên bi bawerî ne.

**Victor Hugo**

Unîversîteya îro ya rastîn, koleksiyona pirtûkan e.

**Thomas Caryle**

Hevalên herî baş, pirtûkên herî baş in.

**Lord Chesterfield**

Maleke bê pirtûk mîna gewdeyekî bê ruh e.

**Cicero**

# Wesiyeta Yaşar Kemal






**Nivîskarê navdar ê kurd Yaşar Kemal, beriya çend mehan peyamek pêşkêşî xwînerên pirtûkên xwe kir.**

Ev peyama Yaşar Kemal meha Mijdarê di merasîmekê li zanîngeha Bîlgê ya Stenbolê de, bi boneya bexşîna diktoraya fexrî hate xwendin, ku ew bi xwe ji ber nexweşiyê nikarîbû beşdar be.

Yaşar Kemal di wê peyamê de ku wekî wesiyetekê bo xwînerên wî tê dîtin, wiha dibêje: "Kesê ku pirtûkên min dixwîne, nabe xelkê bikuje, divê bibe dijminê şer.

Divê li dijî biçûkirina mirovan ji aliyê mirovan bisekine. Nabe kes birayê xwe ji xwe kêmtir bibîne, û hewl bo nemana wî bide. Nabe rê bidin wan dewlet û hikûmetên ku hewla jinavbirina mirovan didin."

Di beşeke din ji peyama Yaşar Kemal de hatiye gotin: «Bila xwînerên min zanibin ku ew kesên hewla têkbirina kultûran didin, çand û kultûra xwe ji dest dane."

Herwiha Yaşar Kemal daxwaz ji xwînerên xwe dike ku destê xwe bidin hejar û feqîran û wiha dibêje: "Ew kesên ku pirtûkên min dixwînin, bila alîkariya hejaran bikin.

Hejarî ji hemû mirovatiyê re şerm e. Xwînerên min divê xwe ji hemû sîfeteke xerab paqij bikin."

Nivîskarê navdarê kurd Yaşar Kemal, ku demek dirêj bû nexweş bû, li bajarê Stenbolê jiyana xwe ji dest da.

# Derseke Kurdî di xwendingeheke Seqizê de

**Ajansa Kurdpa: Bo cara yekemîn piştî deshilata hikûmeta Îslamiya Îranê, waneya zimanê Kurdî li xwendingeheke bajarê Seqiz a Rojhilata Kurdistanê tê xwendin.**

Li gor raportan, hefteyek piştî roja cîhanî a zimanê dayîkê, bi kombûna mamostayên dibistana Selahedîn Eyûbî a Seqizê, pitrtûka waneya Kurdî bo fêrkirinê hat destnîşan kirin.

Pirtûka dersa Kurdî ku bo xwendevanên dibistana navendî tê gotin, ji aliyê girûpa zimanê Farsî ve hatiye amadekirin. Roja 21'ê Sibatê roja cîhanî a Zimanê Zikmakî, dersa yekem a wê pirtîkê bo xwendevanan hatibû gotin. Herçend li gora madeya 15'an a yasa bingehîn ya Îranê dibe neteweyên xeynî Fars jî bikarin bi zimanê xwe yê daykî bixwînin û binivîsin, lê ew madeya yasaya bingehîn ji aliyê deshilatdarên rejîma Îranê ve tê binpêkirin.



# Zimanê Kurdî



## Beşa 13. Dema nivîsînê

**Rengên heyberên jêrîn binivîsin.**

| | |
|---|---|
| Pembû ................ ye. | Zêr .......................e. |
| Derya ....................e. | Zeytûn ..................e. |
| Kevz .......................e. | Firingî ...................e. |

## UNÎTEYA 4.
## Laş û Tenduristî







# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Ji vêrê heta Balete, hemî mihêt kurrete, girêçka hey, avi ne. Çil nêriyên tiktikî, gon naxu, guhan dikî. Teyrek heye ji hêlîn, 16 sal nafirit, rojek diçit sere zîn, li hêlîna nû digerit.

**Kiç/Qîz**

2- Xodanê pez û mêş e, bo e`bdal û derwêş e.

**Şivan**

3- Di ser avê ra diçit sihê nakit.
- Di ser avê ra diçit, ne mirov dibînit, ne sîberê dikit. Ne pê heye ne qaç e, ez dimînim, ew diçe.

**Deng**

4- Serê şirîn e, binê tehl e.

**Şerr**

5- Tu li kîrê bî, ya bi dûv te ve.
- Hindî di çimê, nagehimê.
- Vi berî dikevit ker nabit, bi avê bikevit terr nabit.
- Li nav agir gerim nabe, li nav avê nerim nabe. Sibe û êvarê ji hevalê xwe mestir e, nîvro biçûktir e. Ez diçim, ew jî diçe, ez radiwestim, ew jî radiweste. Ne sivk e ne giran, hem bê ruh e hem bê can e, geh dirêj e, geh jî gir e, ewê ji me qet ne dur e.

**Sîber/sî**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

Agirî

◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (249)

# Hewcehî û metirsiyên avê bixwînin



Tenê %1’ê ava cîhanê tê vexwarin û nîzîkî 700 milyon kes ji xelkê welatê Çînê ava pîs vedixon. Di welatên pêşkevtî ên cîhanê de jî 9 milyon kes hene ku nikarin ava paqij bi dest bixin û herweha tenê li Afriqayê jî 356 milyon kes hene ku nikarin ava paqij bi kar bînin.

Rêjeya ava paqij a bin erdê ji ava paqij a ser erdê zêdetir e. Vexwarina ava zor dibe sedema mirinê.
Vexwarina ava zor rêjeya Sodyomê di mêjiyê mirov de kêm dike.

%31 ji hêstiyên mirov ji avê pêk tê.
Di cîhanê de ji her 9 kesan, kesek nikare ava paqij bi dest bixe.

Av bixwe elektrîkê nagehîne, belkî madê û kirs û axa nav de vî karî dike.

Di sedsalên navîn de bîre zêdetir ji avê hatiye bikaranîn.
Ava gerim ji ava sar qurstr e.

%90 ji ava şirîn a cîhanê di cemsera başûr de ye.

Komgeheke avê di valahiya esman de heye ku 140 tirilyon carî, zêdetir ji ava hemû erdê, av tê de heye.

Du li ser sê ya ava ku di her malekê de tê bikaranîn, di germê û WC’yê de tê bikaranîn.

%75 ji pîsayîya mirov ji avê pêk tê.

Av Tenê %7 ji kêşa erdê, û %4 ji rûberê erdê pêk tîne.
%20 ji ava necemidî a cîhanê, tenê dikeve behra Baykag li welatê Rûsiayê.

Di hindek rewşan de ava gerim bileztir ji ava sar dicemide.
%86 ji avên pîroz ên cîhanê nepaqij in.

Berwara (rêkevta) nivîsandî li ser botlên avê, dema êkspayêrbûna botlê ye, ne ya ava ku tê de ye.

Zerafe pitir ji Huştirê di dema rê çûyînê de xwe li hember bê aviyê de radigire.
Mêrek Almanî 22 deqe û 22 çirkeyan di bin avê de bê bêhnvedan ma, û rekorda cîhanî şikand.

Ava hewzên melekirinê(Îstexr) di heyvekê de, bi sedema germê, dibin helm û hezar kalon ji ava xwe ji dest didin.
Her WC’yek bona paqijkirinê, 6 lîtrên ava paqij dixwaze.

%10 ji ava Kalîforniyayê bona berhemanîna Badamê tê bikar anîn.

Malek Amerîkî di 7 sal û nîvan de ew qas avê bi kar tîne, ku tenê di çirkeyekê di Sûlava Niyagarayê de tê xwar.
Hejmara wan madeyan ku av dikare vehelîne, zêdetir e ji wan madeyan ku her şilemeniyek din dikare vehelîne.

Xelkê Amerîkayê di rojekê de 2 hemberî xelkê Ewropayê avê bikar tînin.

Bi wan şîreyên avê ku di her çirkeyekê de, dilopek avê lê tê, salê 3 hezar kalon av xisar dibe.

Xelkê Amerîkayê di rojê de zêdetir ji her karekî din, bona şuştina WC’ê avê bi kar tînin.
Li bajarê Dînver a ser bi herêma Kolorado ya Amerîkayê, av zûtir ji Nîyoyorkê gerim dibe.
Di dema jidayîkbûnê de %80 ji cesteyê mirov av e.

Di her rojekê de hemwelatiyekî Amerîkayî, bi awayekî asayî di navbera 70 heya 100 kalon avê bi kar tîne.

Di her rojekê de li seranserê Amerîkayê de, 346 hezar milyon kalonên avê tên bi kar anîn.

Di her salekê de 3 milyon û 400 hezar kes bi hokarên têkilîdar bi avê ve, canê xwe ji dest didin.
Xelkê Afrîqa û Asyayê hewce ye ku li ser hev 6 kîlomêtran herin heya bikarin avê bi dest bixin.

# Çend rê ji bo spîkirina didanan



Hemû xelk dixwaze ku didanên wan spî bin, bona vê ku di dema qisekirinê de, didanên wan bi awayekî ciwan û balkêş xuya bin, ji ber ku çend rêyên xwezayî û hêsan hene ku alîkariya spîkirina didanan dikin.
Çend rêyên spîkirina didanan bi xwê:

1-Tevlîhevkirina Xwêya req û Lîmo û hindek ava germ, heya ku wekî doşavê çê dibe, piştre danên nav befirgirê û heftiyê du caran piştî nanxwarinê di cihê dermanê didanan, bi vê madeya ku we çêkiriye, didanên xwe bişon.

2-Agehdar bin ku di dema bikaranîna vê madeya ku we çêkiriye, puyên xwe birîndar nekin.

3-Xwêya girdik tevlî Bîkerbonat Sodyomê bike, û heftiyê du car didanê xwe bi vî awayî paqij bike.